*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd*
*di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*
*www.agirimedia.org Hejmar (245) 05-01-2014 Buha (150) Tûmen*



## Peyama pîrozbahiya birêz Mistefa Hicrî bi hinceta sersala nû a Zayînî

R: 2

## Ferşeke sor bo terorîstekî rûreş



Danana ferşa sor bo Sehrarûdî, hesta Kurdên niştimanperwer birîndar kir.

Xelk û aliyên siyasî ên Kurdistana Îranê, pêşwaziya berpirsên paye bilind ên Herêma Kurdistana Îraqê ji bikujê şehîdê nemir Dr. Qasimlo pirotesto kirin.

Piştî vê ku roja Înê 26.12. 2014 (05.10.1393)'an şandek Komara Îslamî bi serokatiya Elî Larîcanî serokê Meclîsa Şêvra Îslamî û bi beşdariya Mihemed Ce'fer Sehrarûdiyê terorîst û yek ji bikujên şehîd Dr. Qasimlo, di serdaneke xwe da bo başûra Kurdistanê tevî pêşwaziya gerim a deshilatdarên Kurdistana Îraqê li Hewlêr û Silêmaniyê berbirû bû, û ferşa sor ji wan re hat raxistin, pêlek berfireh ji nerazîbûnên xelk û aliyên şoreşgêr û çalakên siyasî yên Kurdistana Îranê li navxwe û dervey welat û herweha li ser medya û torên civakî li pey xwe anî.

Her di vê derheqê de Mihemed Nezîf Qadirî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ di hevpeyvîneke xwe de tevî rojnameya Kurdistanê ragehand ku: "Wergirtin û pêşwazîkirina bi vî awayî ji terorîstekî wekî Sehrarûdî, di despêkê de bêrêzî ye bi serweriya Herêma Kurdistanê û piştre bi bizava rizgarîxwaziya gelê Kurd li Kurdistana Rojhilat û kesatiya rêberê mezin Şehîd Dr. Qasimlo û hemû şehîdên rêya xebat li dijî terorîzmê, û heya bêrêzî ye bi pêşmerge û şehîdên Kurdistana Başûr jî".

Birêz Qadirî herweha ji rêya televizyona Rûdawê ve regehand ku: "Pêşwaziya ji Sehrarûdî li başûra Kurdistanê bi wî qasî rewa ye ku, Kurdên Kurdistana Rojhilat pêşwaziya Elî Hesen Mecid bikin".

Herweha Dr. Mîro Eliyar endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ di hevpeyvînekê de tevî "Tîshk TV"yê ragehand ku:" Mixabin ku ez vê yekê dibêjim, lê berpirên herdu partiyên YNK û PDK'ê li ser vê yekê ku kîjan zûtir bigihîjin xizmeta Larîcanî û bi

Dom R: 2

*"PDKÎ pêşwaziya ji Sehrarûdî bikujê Dr. Qasimlo, wekî bê hurmetî bi serweriya Herêma Kurdistanê û ...".*


Birêz Mihemed Nezîf Qadirî

3

*"Dr. Qasimlo gote min, min jî pêştir di Yekîtiya Lawan de kar dikir, û piştre tevlî refên hizbê bûm".*


Birêz Luqman Mêhfer

8

*"PKK partiyeke şoreşger e, lê belê demokrat nîne. Aliyê wê yê neteweyî lawaz e...".*


Birêz Botan çalakê siyasî

4

*Komara Îslamî û rewşa kêmaniyên neteweyî û ayînî*



6

*Îro Kûba, û siberojê Îran*



7

## Sergotar

# Exlaq û siyaset

### Şehab Xalidî

PDKÎ ew partiya ye ku nêzîk bi heft dehikan berî niha di nav dilê Kurdistana Rojhilat de, komara herî demokratîk li çav deshilatên din yên di Rojhilata Navîn de ava kir, û serokê vê partiyê wate Pêşewa Qazî Mihemed di gotara xwe ya ragehandina Komara Kurdistanê de, neteweyîbûna bîr û boçûn, û siyasetên partiya xwe selimand, dema ku got: "Îro roja herî xweş e di jiyana hemû Kurdekî de, ku alaya serxwebûna Kurd hatiye hildan, û li ser bilindahiya Mehabadê pêlan dide...goristana şehîdên riya rizgariyê beşeke zaf ji erdê her çar beşên Kurdistanê bi xwe ve girtiye".

Lê niha jî rêvîngên riya pirr ji serwerî ya pêşewa Qazî Mihemed li ser rê û şopa wî berdewam in, û exlaq di siyasetê de -ku şehîd Qasimlo bawerî bi vê yekê hebû- kirine bingeha pêwendiyên siyasî, û di pirsa neteweyî de, tu carî li ser hesaba Kurdên tu parçeyeke din, bi dagîrkarên Kurdistanê re pêwendî ava nekirine û nakin jî. Lê mixabin di van çend rojên borî de, berpirsyarên Herêma Kurdistana Başûr, ferşê sor bo bikujê Dr. Qasimlo rêberê karîzma yê vê partiyê, û rêberê tevgera neteweyî-demokratîk ya Kurd li rojhilata Kurdistanê raxistin.

Mixabin wan rêberên başûra Kurdistanê, ew bêhurmetiya kirin, û ferşê sor ji bo terorîst û bikujê rêberekî Kurd –ku wî rêberê mezin di jiyana siyasî ya xwe de, bi kiryar selimand ku rêberekî neteweyî û serkirdeyekî jêhatî bo hemû neteweya Kurd e- raxistin, ku bas ji yekîtiya yekîtiya Kurdan û birêvebirina kongireya neteweyî di bin siya xwe de dikin.
Belê wan bi vê kiryara xwe, hesta bi milyonan Kurdên rojhilata Kurdistanê birîndar kirin, ew xelkê ku hertim bi serkevtinên Herêma Kurdistanê dilxweş dibûn, û dest bi govend û şayiyan dikirin, û di heman demê de jî bi êş û azarên wan dilgiran dibûn.
Diba ku ew ferşê sor bo wan pêşmergeyên PDKÎ hatiba raxistin, ku ji bo bergirî ji xaka Kurdistana Başûr çûne bereyên şerê li dijî DAÎŞ'ê, û amade bûn ku ji bo her bihusteke axa vê para Kurdistanê canê xwe gorî bikin. Lê di dawiyê de em her vê yekê dibêjne rêberên Hikûmeta Herêma Kurdistanê ku "Rê dibin bihust, dijmin nabin dost".

# Peyama pîrozbahiya birêz Mistefa Hicrî bi hinceta sersala nû a Zayînî



**Kurdistanmedia: Sekreterê giştî yê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê derheq sala nû a Zayînî (2015'an) peyamek pêşkêşî Xiristiyanên Îranê û Kurdistanê kir.**

Deqa peyamê bi vî awayê ye:
Bi boneya roja ji dayîkbûna Hizretê Mesîh û destpêka sala nû a 2015'an a Zayînî, pîrozbahiyeke germ ji Xiristiyanan (Mesîhî) û bi xasmanî Xiristiyanên Îranê û Rojhilata Kurdistanê dikim.

Hêvîdarim sala nû, bo hemû aliyekê saleke tejî ji xêr û xweşî û aştî û aramî be.

**Partiya Demokrt a Kurdistana Îranê**
**Sekreterê giştî**
**Mistefa Hicr**

# Hewlêr/ Nûnerê PDKÎ di civîna partî û aliyên siyasî ên Kurdistanê de pişikdarî kir



Kurdistanmedia: Nûnerê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê di civîna partî û aliyên siyasî ên Kurtdistanê de li Hewlêrê, derheq bi gireva girtiyên siyasî yên Kurd, beşdarî kir.

Li gor rapora malpera Kurdistanmedia, roja Şemî 20'ê Çileya Pêşîn a 2014'an, civînekî berfireh a partî û aliyê siyasî yên Kurdistanî ku bi giştî 65 rêxistin bûn, di holêta Çarçira a Hewlêrê de hat lidarxistin û Mihemed Nezîf Qadirî endamê Polîtbîroya PDKÎ di vê civînê de beşdar bû.

Pirogirama karî a civînê pêk hatibû ji helsengandina rewşa siyasî a Bakûrê Kurdistanê û çawaniya pêşbirina piroseya aştî a Kurd û dewleta Tirkiyê, hewldana wêdebirina navê PKK bi nav lîsteya terorê û azadkirina Ebdulla Ocelan serokê Partiya Karkerên Kurdistanê (PKK).
Di pêwendî ligel Rojavayê Kurdistanê, basek li ser xebat û berxwedana xortên Kurd li Rojavayê Kurdistanê û encama lihevkirina Dihokê ji aliyê partî û rêxistinên wî para Kurdistanê, hat pêşkeşkirin.

Di vê raportê de li ser Rojhilatê Kurdistanê jî, siyaseta qirêj a rejîmaÎslamiya Îranê li hember pirsa neteweyî û binpêkirina mafê mirov di Rojhilatê Kurdistanê û girtin û darvekirina çalakvanên siyasî û sivîl basek bû ku ji aliyê nûnerên partî û aliyên siyasî yên Rojhilatê Kurdistanê ve hat pêşkeşkirin.

Nûnerên partî û aliyên siyasî tên Kurdistana Îranê li ser gireve birçîbûna girtiyên siyasî yên Kurd di girtîxaneya Urmiyê axaftinek kirin û helwêsta siyasî û şoreşgirane û bilind nirxandina wê xweragiriyê û marala wan girtiyane û daxwaz ji parî û aliyên siyasî û rêxistinên mafên mirovan kir ku ew siyaseta rejîma celat a Îslamiya Îranê protesto bikin û bi hawara wan zîndaniyane ve biçin ku canê wan ji aliyê rejîma Îranê ve di metirsiyê de ye.

Dom R: 6

Doma R: 1

taybetî terorîst Sehrarûdî, û kîjan zûtir wan maçê bike, û kîjan zêdetir wan bigire hembêza xwe, û wan bişidîne bersîngê xwe, kêbirkê danîbûn, wekî vê yekê ku serkomarê Amerîkayê hatibe serdana Herêma Kurdisanê".

Birêz Miro Elyar herweha di doma gotinên xwe de got ku: "Em hêvîdar in ku berpirsyarên van du partiyan û Herêma Kurdistanê di hember pirsên neteweyî de pêdeçûnê bi ser siyasetên xwe de bikin, ji ber ku tu ji aliyekî ve basa "Kongireya Neteweyî" dikî, û basa berjewendiyên neteweyî dikî, basa yekgirtîbûna Kurdan dikî, basa lihevhatinê dikî, ji aliyê din ve bi vî awayî bêrêziyê bi 10 milyon Kurdên Kurdistana Rojhilat dikî, û weha helwêstê digirî, lewma eva, hemû mijarê dibe jêr pirsyarê".

Deqa hevpeyvîna birêz Mihemmed Nezîf Qadirî di rûpela 3'ê ya vê hejmara "Agirî" de hatiye weşandin.

**Birêz Mihemednezîf Qadirî: "PDKÎ û xelkê Kurdistanê di rojhilata Kurdistanê de, pêşwaziya ji Sehrarûdî bikujê Dr. Qasimlo, wekî bê hurmetî bi serweriya Herêma Kurdistanê, û piştre jî bi kesayetiya rêberê mezin Dr. Qasimlo û xwîna wan hemû şehîdan dizanin, ku di şerê li dijî terorê di Herêma Kurdistanê de şehîd bûne".**



## *Li derheq pêşwaziya lîderên Herêma Kurdistanê ji bikujê şehîd Dr. Qasimlo*

## *Hevpeyvînek digel birêz Mihemed Nezîf Qadirî endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ*

**A: Selam Îsma'îlpûr**

**Pirs: Armanca serdana vê dawiyê ya şanda Meclîsa Şêvra Îslamiya Îranê li Kurdistana Îranê, bi dîtina we çi bû?**

**Bersiv:** Di rastî de serdana heyetên Îran û Îraqê bo welatên hevûdu, piştî hiloşîna rejîma Îraqê ji sala 2003'an şûnde tişteke nû nine. Di hemû warên siyasî, leşkerî û aborî de, berpirsayrên payebilind yên herdu welatan serdana hevûdu dikin.

Serdana vê carê ya Elî Larîcanî serokê Meclîsa Şêvra Îslamî bo Îraqê û Herêma Kurdistanê, piştî serdana Selîm Cibûrî serokê parlemênta Îraqê bû. Ev serdana Elî Larîcanî di bersiva vê serdanê de bû.

**Pirs: Hatina kesekî wekî Sehrarûdiyê terrorist û bikujê D. Qasimlo di nav şana Îranê de, xwediyê çi wata û peyamekê ji bo Kurd û başûra Kurdistanê bû?**

**Bersiv:** Hekî em bi hûrî li pêkhateya heyetên Komara Islmaiya Îranê bo derveyî sînorên Îranê bikin, em dibînin ku piraniya wan kesan ser bi dem û dezgehên ewlehiyê yên rejîma Îranê ne, û erka sereke ya wan pêwendîgirtina bi partî û aliyên girêdayî bi rejîma Îranê ne, ku di welatên xwe de peyrewiyê ji siyasetên dijî mirovî ên Komara Îslamiya Îranê dikin, û karê terorîstî dikin, û sebebkarê aloziyê ne di welatên xwe de.

Pêkhateya vê heyetê jî ku Elî Larîcanî serokatiya wê dikir, kesên wekî daxwazkirî û terorîst ên wekî Sehrarûdî dige de bû ku ji aliyê polîsê navneteweyî ve bi tawana şehîdkirina rêberê gelê Kurd Dr. Qasimlo û hevalên wî di Viyenê de, di 13.07.1989 (22.04.1368)'an de li jêr şopandinê de ye. Anîna vcî terorîstî bi dîtina nme çend wateyên wê hene:
1-Girîngînedana bi wan aliyên rojavayî ku li ser vê faylê boçûna xwe eşkere kirine, û niha jî pêdagir in li ser girtina biryarder û terorîstên vê tawanê û dehan terorîstên din dikin.
2-Sehrarûdî yek ji wan pasdaran bû ku ji aliyê rejîma Îranê ve, bo cîbicîkirina aliyên Îraqî û heya Kurdan jî hatiye diyarîkirin, û berdewam bi awayê veşartî û eşkere hatûçûna Kurdistanê kiriye. Pîlandarêjerê karê terorîstî bûye. Ya balkêş ew bû ku vê varê armancdarane Sehrarûdî anîn Kurdistanê, û di nav kincên dîolomasî de navbirî anîn, bona vê ku bi wan aliyên ku dibêjin Sehrarûdî bikujê Dr. Qasimlo ye, bêjin ku Sehrarûdî dûr e ji wan tawanan, û eva nina rêberên Kurd jî bi germî pêşwaziyê ji wî dikin, û ferşa sor jê re radixin û wî hiombêz dikin, û dixwazin wî bê tawan nîşan bidin.

Lê bi xweşî ve raya giştî û helwesta kesayetiyên nîştimanperwer ê Kurd û berevankarên mafên mirovan û girtina hêlwestên mirovî û neteweyî, ew dildariya berçav ya wan şermezar kir, û carek din civatên xelkê nîşan dan ku îradeya wan ji helwêsta rezîlane ya komek bi nav serkirde û aliyê xapînok gellek bihêztir e, û nahêlin ku behayên wan yên neteweyî û xwîna pak ya rêberên wekî Dr. Qasimlo bikin alva danûstandinên wan aliyan.

**Pirs: Ew pêşwaziya germ ya berpirsyarên aliyên hizbî û hikûmî yên Herêma Kurdistanê ji bikujê şehîd Dr. Qasimlo heya çiqasî ji bo we û xelkê Kurdistana Îranê çavnihêrkirî bû, û gelo we jêve nine ew pêşwazî, metirsiyeke wê ji bo tevgera Kurd bi giştî û Kurdistana Îranê û PDKÎ bi taybetî hebe?**




**Bersiv:** Em û xelkê Kurdistanê rojek ji rojan dudil nebûn ji vê ku kesên wekî Sehrarûdî û Qasim Silêmanî û ...hwd xwe di Îraqê û Hewrêma Kurdistanê xwe xwediyê malê dizanin, û kêmtir rêz bo rêber û sîstema siyasî ya Herêma Kurdistanê dadinên, lewra em tevî piştevanîkirin ji deskevtên Kurdistanê û îradeya bihêz ya xelkê Kurdistanê li başûra Kurdistanê kiriye, û tu carî me ew metisiya jî neveşartiye, ku ew pêwendiya bê sînor ya partiyên Herêma Kurdistanê digel rejîma Îranê , û siyaseta destêwerdana vê rejîmê li karûbarên Kurdistanê de, wekî metirsiya herî mezin dizanin bo ser piroseya siyasî ya Kurd bi giştî û Herêma Kudristanê bi taybetî, ku niha di qonaxeke hestiyar re derbaz dibe, û herwisa me dît dema ku pirsa dewleta neteweyî hate holê, rejîma ranê yekem rejîm bû ku li dijî vê pirsê helwest girt.

**Pirs: Dijkiryar yan helwêsta we, wekî PDKÎ û peyama we ji bo xelkê Kurdistanê û aliyên siyasî û Hikûmeta Herêma Kurdistanê di vê derheqê de çiye?**

**Bersiv:** PDKÎ û xelkê Kurdistanê di rojhilata Kurdistanê gellek nerehet in ji vê pêşwaziya dûr ji çavnihêriyê ya rêber û berpirsyarên paye bilind ên Herêam Kurdistanê, û wergirtina terorîst sehrarûdî, û vê yekê berî hemiyan, em wekî bê hurmetî bi serweriya Herêma Kurdistanê dizanin û piştre jî bi tevgera rizgarîxwaziya gelê Kurd di Kurdistana Rojhilat û kesayetiya rêberê mezên Dr. Qasimlo û xwîna wan hemû şehîdên ku di şerê li dijî terorê di Herêma Kurdistanê de şahîd bûne.

# Heval Botan: "Di Tirkiyê de, ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd firsenda xebata siyasî û riyên demokratik hene. Niha jî di parlemênta Tirkiyê de, endamên PKK hene ".



## pêwîst e ku Kurd çav li guhartinên desturî bikin, û tenê wan guhartinan bikin bingeha tekoşîna xwe

Pêvajoya aştiyê heya niha gellek evraz û nişîv li pey xwe hêştine, heya ku gihaye îro rojê, û hem hikûmet û hem jî HDP, bi çareseriyê hêvîdar û kêfxweş in.
Lê hevdem digel vê kêfxweşiyê, em dibînin û dibihîsin ku carina berpirsyarên AKP'ê radigehînin ku PKK gurekî har e, û ji DAÎŞ'ê metorsîdartir e.
Di vê navberê de, ew pirsyara mêjiyê mirov dide ber pêlên xwe, ku gelo hekî PKK terorîst û gurekî har be, ewê çawa digel wî gurê har aştiyê bo neteweyekê bikin diyarî! Di vê derheqê de me bi hewce zanî ku bi çalakvanê siyasî Heval Botan re hevpeyvînekê pêk bînin, ku navbirî bi rohnî boçûna xwe li ser vê pirsa girîng aniye ziman (boçûnên birêz Botan helwest û boçûnên rojnameya Agirî ninin).

H: Şehab Xalidî

**Pirs: Herdu alî, wate hem HDP û hem jî Tirkiye, li ser vê baweriyê ne ku dawî hevdîtina HDP'ê û birêz Ocalan li ser pêvajoya aştiyê, berhemdar bûye, hûn vê boçûnê çawa şirove dikin?**

**Bersiv:** Dema berê bi caran hevdîtin çebûn. Lê belê bi destêwerdana hezên navxweyî û yên derve vala derketin. Lê em dikarin bêjin, hevdîtinên vê carê, ji yên berê cidîtir in. Herdu alî jî bi encamên tecrubeyên xwe nezîkî pêvajoyê dibin. Ji ber vê yeke mecala serxistina pêvajoyê zêdetir e.

**Pirs: Berpirsyarên hikûmeta Tirkiyê dibêjin ku emê hewl bidin partiyên din yên Kurdî jî di van gotûbêjan de beşdar bikin, û bila tenê PKK nebe, gelo hekî hikûmet bikare karekî bi vî rengî bike, wê pirose çawa here pêş?**

**Bersiv:** Ji bo çareserkirina pirsgirêka şer û çekdanînê, hetmen hikûmeta Tirkiyê û PKK'ê aliyên serekî ne. Lê belê ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd tenê PKK nîne. Hikûmetê hata niha jî, ji bo pirsgirêka Kurd tenê PKK qebûl kiriye.

Ew kêmasiyek bû. Pêwîst e ku hemû partî û rêxistinên Kurd tevlî pêvajo û hevdîtînan bin. Hêvdîtin bi HAK-PAR û Huda- Par'ê ra gavêk rast e. Lê pêwîst e ku hemû partî û rêxistinên din jî tevlî hevdîtinan bin. Derfeta serkeftinê bi vî awayî zêde dibe.

**Pirs: Gelo çima berpirsyarên Tirkiyê dibêjin ku hewce nake em demeke diyarîkirî ji bo bidawîanîna pirosesê rabigehînin, gelo hûn bêjin Tirkiye dixwaze wextkujiyê bike, û armanca wê çareseriyeke rasteqîne nebe?**

**Bersiv:** Dewleta Tirk hata niha jî bo pirsgirêka Kurd xwedî nêrînek rast nîne. Berî pirsgirêka Kurdan, dixwaze pirsgrêka PKK çareser bike. Ji ber vê yekê jî, bona derxistina PKK ji sînorên Tirkiyê, û çekdanîna gerîla dixebite. Hikûmet dibeje piştî vê ku PKK çekên xwe danên, ezê jî hin gavan bavêjim.

Lê armanca wê ye bingehîn heta hilbijartina 2015'an bikaranîna wext ji bo berjewendiya xwe ye. Hekî PKK bi bê garantîkirina destûrî çekên xwe danê, û ji sînoran vekişe, eva gellek şaş dibe. Ji ber ku tu garantî nîne ku dewleta Tirkiyê piştî vê hilbijartinê gavan bavêje, yan na?






**Pirs: Gelo çima Tirkiye aliyekî sêyemîn di van gotûbêjan de qebûl nake, û dibêje eva pirseke navxweyî ye?**

**Bersiv:** Dewleta Tirk çiqas bêje "pêvajoya çareserî" jî, armanca wê ya bingehîn çekkirina PKK'ê ye. Dewlet baş dizane ku hekî aliyê sêyemîn tevlî pêvajoyê bibe, rastî wê derkeve holê. Rastî jî, yekem pirs, pirsa Kurd e. Pêdagirînekirina PKK ji bo tevlîkirina aliyê sêyemîn, destê dewletê xurttir dike.

Di dîrokê da diyar e ku piraniya pirsgirêkên neteweyî bi beşdariya aliyê sêyemîn hatine çareserkirin. Ji bo Kurdan jî tevlîbûna Amerîka û Ewropa gellek girîng e, û pêwîst e ku di vê mîjarê da PKK pêdagir be.

**Pirs: Gelo heyamekê berî niha Erdoxan ragehand ku tu cudahiyek di navbera PKK û DAÎŞ'ê de tuneye, û çend roj berî niha Beşîr Atalay jî ragehand ku PKK gurekî har e, û DAÎŞ jî bela ye, gelo ji aliyekî behsa aştiyê dikin, ji aliyekî din ve jî bi vî rengî êrîşî ser PKK dikin, gelo ma ew axavtinên tundûtîj bandora nigatîv li ser piroseyê dananên?**

**Bersiv:** Ji aliyekî ve, pêvajoya aştiyê berdewam e, û ji aliyekî din ve, Erdoxan, serokê parlemêntê C. Çiçek û hin kesên berpirsyar axivtinên dijberî Kurdan dikin. Car caran di daxuyaniyên xwe da li ser deskevtên Kurdan diçin, û dixwazin tune bikin.

Dewleta Tirk li gora nakokî û şerên ku di herêmê de têne jiyankirin, gavan davêje. Daxuyaniyên negatîv armanca bingehîn derdixin holê.

Bêguman daxuyaniyen bi vî awayî, berevajiyê ruh û armancên pêvajoyê ne. Lê pêwîst e ku Kurd çav li guhartinên desturî bikin, û tenê wan guhartinan bikin bingeha tekoşîna xwe, û li ser bingeha gotin û daxuyaniyan helwêstê negrin.

**Pirs: Hekî ew pirose bigihîje encamê, û PKK ji çiya bê xwar, gelo hûn bêjin bi xebata siyasî û medenî Kurd bikarin mafên xwe yên siyasî û neteweyî bi dest bixin, yan îmkana serkuta vê xebata siyasî heye, hûn bi giştî çawan vê qonaxê şirove dikin?**

**Bersiv:** Di Tirkiyê de, ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd firsenda xebata siyasî û riyên demokratik hene. Niha jî di parlemênta Tirkiyê de, endamên PKK hene. Di her beşên xebatê de, rêxistinen wê yên legal hene.

Li derveyî wan jî, li Tirkiyê partî û rêxistinan bi navê "Kurdistanê" ava bûne. Helbet niha jî fikrên şovenî bandora xwe li ser siyasetê çêdikin. Ji bona nehêlana wan boçûn û hizrên şovenîstî, pêwîst e ku nasnameya Kurd bê qabûlkirin, û astengiyên ku nahêlin Kurd bigîhîjin mafên xwe yên neteweyî, ji holê rabin. Dibe di destûra bingehîn ya nû de, ew maf bêne garantîkirin.

Li Bakura Kurdistanê bingeha pirsgirêkan ne tenê dewleta Tirk e, belkû PKK ye jî. PKK partiyeke şoreşger e, lê belê demokrat nîne. Aliyê wê yê neteweyî lawaz e. Ew taybetmendiyên wê pêşiya yekîtiya Kurdan dibe astengî, û nahêle ku hêz û qaveta Kurdan bigihîje hevûdu, û bibe hêzeke siyasî. Hekî ew nêzîkbûna PKK tunebe, îhtîmala sabotebûna pêvajoyê heye.

## *Babê sê şehîdên rêya rizgariya Kurd û Kurdistanê koça dawiyê kir*

Kesayetiyê navdar yê bajarê Makûyê, "Hecî Ebdulla Hesenzade Cinîkanlû", ku hevdem babê sê şehîdên PDKÎ bû, di temenê 100 saliyê de li bajarê Agirî a ser bi Kurdistana bakûr koça dawiyê kir.

Hecî Ebdulla Hesenzade Cinîkanlû babê sê şehîdên Kurdistanê bi navên Gulê, Îbrahî û Hesen Hesenzade ye, û li gundê "Yarmiq" a ser bi bajarê Makûyê hatiye dinê û xwediyê malbatek naskirî û bi nav û geng bûye di herêma xw de.

Hecî Ebdulla û malbata xwe, beşdarî Şoreşa Agiriyê bûne û piştî nemana şoreşê, ji aliyê rejîma Pehlewî ve ber bi bajarê Qezwînê tên veguhaztin. Lê hesta xebatkarî û nîştimanperweriya Hecî Ebdulla serbarê veguhaztina neçarî û êş û elemên zaf, her rê nade ku destan ji Kurdatiyê bikişîne, lewra bi xwe û malbat û eşîra xwe di sala 1945(1324)'an, tevlî refên awakerên Komara Kurdistanê li bajarê Mehabadê dibe.

Piştî herifîna Komara Kurdistanê cardin Hecî Ebdula û malbata xwe ber bi devera Makûyê vedigerin û li wir Barzaniyan ji çemê Eresê derbaz dike, û her eva jî dibe sedem ku cardin



bikeve ber xezeba deshilata Pehlewî. Piştî jinavbirina rejîma Pehlewî û her di sala 1978(1357)'an de, Hecî Ebdulla têkiliyên xwe tevî PDKÎ û rêberê navdarê Kurd Dr. Qasimlo çêdike, û bi vî awayî bi xwe û malbata xwe tevî refên pêşmergên PDKÎ dibin, û bi dehan destanrêsî û mêrxasiyan di dîroka neteweya xwe de derbas dike.

Di sala 1982 (1361)'an de hêlîkopterên Komara Îslamî gundê Yarmiqê bombebaran dikin û mixabin keça Hecî Ebdulla bi navê Gulê tevlê refên şehîdên Kurd û Kurdistanê dibe. Her di dema veşartinê de û li ser termê keça xwe Hecî Ebdulla diqêrîne



û dibêje: " Mal û jiyan û hemû kes û karên min goriyê te bin Kuristan".

Mehekê piştî bûyera şehîdketina Gulê, kurekî Hecî Ebdulla bi navê Îbrahîm ku pêşmergê PDKÎ bû di şerekî de tevî dagirkerên Komara Îslamî, li herêma Çaldiranê hate şehîdkirin. Herweha kurê mezin yê Hecî Ebdulla bi navê Hesen ku fermandeyê hêzên PDKÎ li devêra Makûyê bû, ji aliyê hêzên dewleta Turkiyê ve tê desteserkirin, û piştî heyamekê bi neçarî ber bi Ewropayê ve diçe.

Piştî çend salan Hesen jî koça dawiyê dike û termê navbirî ber bi wargehê bab û bapîrên wî tê vegerandin. Piştî çend rojan termê şehîd Hesen ji aliyê hêzên Komara îslamî ve ji axê derdixînin, û heya niha jî kes nizane ku termê pîroz ê şehîd Hesen ber bi ku derê hatiye veguhastin.

Hecî Ebdula piştî deyan sal xebat û peşmergatiya bê sekinîn, bi sedema pîrî û temenê zaf, li ser îzna PDKÎ ber bi devera Agirî ya ser bi Bakûra Kurdistanê diçe, û heya dawiya jiyana xwe li wir ma. Termê Hecî Ebdula Hesenzade di nava aporaya xelkê wê herêmê û li gorîstana "Qere Kilîsay" ya ser bi bajarê Agiriyê bi axa pîroz a nîştiman hate sipartin.

# Komara Îslamî û rewşa kêmaniyên neteweyî û ayînî



Arif Vêlzî



Di çend rojên borî û di şanoyeke bi guman de, ji aliyê rêkxirawên parêzerên mafên mirov yên Komara Îslamiya Îranê ve, "Molewî Ebdulhemîd Îsma'îlzihî" pêşnimêjê bajarê Zahidanê a ser bi Sîstan û Belûçistanê ku hevdem serokê zankoya herî mezin Suniyan di Îranê de ye, bi peykerê menşûra Koroş hate xelatkirin, û wekî çalakê mafê mirov di sala 1393'an de hate nasîn.

Herwisa hate ragehandin ku ew xelat rêzgiritine ji hewl û çalakiyê Mewlewî Ebdulhemîd di çend salên borî de, ku di pêxema pêkvejiyan û rêzgirtina di navbera qewm û aliyên curbicur ên ayînî û mesebî di parêzgeha Sîstan û Belûçistanê de daye.

Hevdem di gel vê şanoyê di rêûresmeke din û di şanoyeke xapînok ya din de, bi beşdariya Elî Yunisî şêvirmendê serkomarê Îranê ji bo karûbarên kêmaniyan û "Mihemed Husên Ebû Torabî" cihgirê serokê Meclîsa Şêvra Îslamiya Îranê perde li ser monomênta leşkerên Cihû yên bêserûşûnbûyî ên şerê heşt sale yên di navbera Îran û Îraqê hate vêdedan.

Eva di demekê de ye ku bi dirêjahiya bidestvegirtina deshilatê ji aliyê rejîma Îslamî ya Îranê ve, bi taybetî di çend salên borî de, di ragehandinên giştî de em guhdarî dikin ku Mewlewî Ebdulhemîd û endamên malbata wî di bin zexta herî zêde ya ruhî û derûnî de ne û berdewam û bi hêcetên cur bicur tenê seba vê ku çalakên Sunî ne, digel girtin û lêdan û îşkence û dûrxistinê berbirû dibin, û heya mafê derketina ji xaka Îranê jî, ji wan tê zewtkirin.

Ya eva ku di Îrana di bin deshilata Komara Îslamiya Îranê de, li derheq Cihûyan hatiye kirin, ew e ku ne tenê bi hemû awayekî hewla jinavbirina ayîn û çand û kultur û bi giştî asîmîlekirina wan hatiye dan û bi awayên herî hovane hatine îşkencekirin, bona vê ku xaka Îranê bi cih bihêlin, em dibînin ku bi sala ye ku Komara Îslamiya Îranê bi eşkere hewla jinavbirin û nehêlana Îsraîlê dide, ku wekî tenê welatê Cihûyan tê hesibandin.

Di rastî de binpêkirina mafê kêmaniyan, ku Komara Îslamî li ser hatiye avakirin, eva zêdetir ji sê dehikan e ku berdewam e û riya xwe dipîve.

Di ya herî nû de, û çend rojan berî niha serbarê girtin û kuştina çalakên Behayî di 35 salên borî de, "Ayetullah Mihemed Mosewiyê Bêcnordî" ku di esla xwe de Îraqî ye, û niha yek ji serkirdeyên "Civata ruhaniyên xebatgêr" û hevdem yek ji ruhaniyên bi nav rewşenbîr e ku ji bo nivîsandina piroje yasaya mafên hevwelatîbûnê yê deshilata Hesen Ruhanî daxwaza alîkariyê jê hatiye kirin, ragehand ku "Ne tenê Behayiyan mafê xwendin di Îranê de tuninin, belkû nabe mafê hevwelatîbûnê jî bidin wan".

Ya eva ku niha pêleke berfîreh ya bêhurmetiyê bi kêmaniyên neteweyî û mesebî di kanalên televîzyonî yên parêzgehan de dest pê kiriye, û tê de bi hemû awayekî hewla şikandin û kirêtkirina çand û kultur û dîroka neteweyên Îranê û bi giştî peyrewên ola Yarsan û Zerdeştî û Mesîhî û Cihû û...hwd tê de didin.

Herwisa bi giştî girtin û kuştin û şopandina çalakên ayînî û çandî û neteweyî, û diyardeya têzav dakirin û nebûna ewlehiya karî, canî û malî, û bêparbûna ji xwendinê û paşvemayîna herêmên curbicur ên Îranê û li serveyî hemiyan bidarvekirina zarokan û nûciwanan di vî welatî de belgeya haşahilnegir û îsbatkirî ya vê rastiyê ne ku Komara Îslamiya Îranê girtîgeha herî mezin e ji bo kêmaniyên neteweyî di nav Îranê de.

Lewra armanca Komara Îslamiya Îranê ji van cure şanogeriyan tenê û tenê, komkirina deng û xapandina kesên sade di navxwe ya Îranê û hevdem nîşandana rûçikeke demokrat û îroyîn e ji deshilata serkutkar û serbereday ya xwe ji bo welatên herêm û cîhanê, û dixwaze wisa nîşan bide ku dadperwerî û mafê kêmaniyên ayîn û mesebî û neteweyî di Îrana di bin deshilata Komara Îslamî de, bi tewahî parastî ye, û bi yek çav ku ew jî çavê wekhevî û hurmetê ye, li tewahiya ayîn û meseb û tuxmekê tê nihêrîn.

Lê bi xatircemî ve ew şanogeriyên deshilata wilayeta feqîh armancên xwe napêkin û bersivder nabin, jiber ku bo tewahiya welatên cîhanê û rêkxiraw û nawendên mafên mirovan li sertaserî cîhanê û bi taybetî rûniştiyên Îranê bi hemû pêkhateyên xwe ve rohn û eşkere ye ku Komara Îslamî yek ji wan welatên herî xirap ên cîhanê ye ji bo binpêkirina mafên mirovan û eva tenê pêkhateyên curbicur yên neteweyî û ayînî û mesebî yên akinciyê Îranê ne ku dikarin mil bi milê hevûdu û yekdeng li dijî vê deshilata serberedayî bisekinin, û biryarê li ser pêşeroja xwe û welatê xwe bidin.

---

Domar R: 2

Herwuha di pêwendîligel Başûrê Kurdistanê jî amadebûyên civînê, xebat û tekoşîna hêza pêşmergeyên Kurdistanê di şerê dijî girûpa terorîstî a DAÎŞ'ê bilind nirxandin û piştevaniya polîtîkane ji siyaset û helwêstên serokê Herêma Kurdistanê derbirîn û peyama hevxemî bo malbatên şehîdên serbilindên pêşmerge ên canê xwe bextê kirine, kirin û hêwiya serkevtina zêdetir bo wan bi hêvî xwastin.

Mihemed Nezîf Qadirî siyaseta PDKÎ li ser rewşa Kurdistana Îranê û rewşa Kurd di wê para Kurdistanê de anî ber bas û li ser hewlên PDKÎ bo hevkarî û hevxebatî ligel parçên din ên Kurdistanê û tekoşîna berdewam a partê bo lidarxistina kongireya neteweyî a Kurd li ser binemayên rastîn ku bikare zimanhalê pirsa Kurd di hemû parê Kurdistanê be axaftin kir ûcarek din li ser siyaseta PDKÎ tekez kir.

Di dawiya civînê de hejmarek rapirsî bo kombûna pêşerojê hatin ber dîda amadebûyên civînê û bû bi bernameya karî a civîna pêşerojê a partî û aliyê siyasî.



Hîwa Mîrzayî

# Nerîna Lîderan



Qereyilan:

**“Armanca me parastina deskevtên başûra Kurdistanê ye”.**



Dr. Mehmûd Osman:

**“Hatina Sehrarûdî berî hemiyan sivikatî bû bi başûra Kurdistanê, ez wekî kurdekî başûr daxwaza lêborînê ji xûşk û birayên rojhilatî dikim”.**



Beşar:

**“Di sala 2015’an de emê serkevtinê bi dest bixin”.**



Potîn:

**“Bidestxistina nîvegirava Kerîme deskevtekî dîrokî bû”.**





# Îro Kûba, û siberojê Îran

*Îstivan Kênzîr, Aron Deyvîd Mîlir*

*Werger: Kêyhan Yusifê*

Pêngavek ber bi paş, û pêngavek ber bi pêş ve. Tu kesî li koşka spî yan di wezareta derve de, ew hevoka li ser têkşikana siyasî ya Kûba, li derheq Amerîkayê bi kar neaniye.

Lê bêguman ew hevoka di dêna gellek ji xelkê Amerîkayê de cih girtiye. Bidawîhatina dijminatiya li gel Kûbayê tenê pêwendiya wê bi mafê mirovî ve nine, belkû dikare hêmaya desteberbûna tenahiyê bo wilayetên yekgirtî jî be. Niha pêkuleke zêdetir li ser rê heye: Avakirina pêwendiya me bi Îranê re.

Kûba û Îran di gellek warî de, wekhev in. Herdu jî xwediyê deshilateke serberedayî ne, û ji aliyê dîktatorên pîr ve têne rêberîkirin. Herdukan îdiaya şoreşeke îdeolojî hene.

Herdu welat di dawiya nîva duyemîn ya sedsala 20’î de, pêwendiyeke dijminkarane bi Amerîka re hebûne. Herdu welatan jî hemwelatiyên Amerîkayê bi dîl girtine. Herduk jî xwediyê nifûseke ciwan, xwedî enirjî û hezkerê Amerîkayê ne. Herdu welat jî ji hêla Amerîkayê ve hatine dorpêçkirin û ...hwd.

Yek ji qazancên herî mezin ên lihevkirina bi Kûbayê re, eva ye ku îmkana aloziyê di wir de kêm de dibe û perspektîveke rohn di hemberî pêvajoyeke demokrasîxwazane vedibe. Avakirina pêwendiyeke dostane bi Îranê re jî -ku ji bo Amerîkayê pirr girîng e, û aramiyê vedigerîne bo cîhanê- dikare bi vî rengî be. Hekî tişteke bi vî rengî rû bide, Barak obama dikare dema ku nivîsîngeha xwe bi cih dihêle, bêje ku ew di siyaseta siberoja xwe de gellek serkevtî bûye.

Dîrok dikare vê yekê wekî deskevteke mezin ya cîhanî di vê qonaxê de tomar bike. Pêşkevtina bidesthatî di vê hefteyê de cihê matmayînê ye, lê dikarî gellek balkêştir ba, hekî ew bûyer ji bo nivşeke pêştir rû daba.

Gellek kes ji nifûsa ciwan nikarin bînin bîra xwe yan bîninm berçavên xwe, ku Kûba yek ji deshilatên xwedîhêz ên cîhanê, û xwediyê pirojeya deshilatê di raserî cîhanê de bûye, herçend ku niha lawaz û hejar e.

Xelkê Kûba jî bi sedema pêwendiya baştir digel Amerîkayê qazancê dikin, û amerîkî di dawiyê de dikarin cixareyên Kûbayî bikirin, û li ser lêvarên Kûbayê de xwe rakêşin. Lê zêdetir ji pêkula di navbera van du welatan de, Venzuêla ku tenê hevalbendê rastîn yê Kûbayê ye, bi egereke zêde, ew dostatiya bandorê lê bike.
Avakirina pêwendiya dostane digel Îranê, dikare ku cudatir be. Bi xatircemî ve ev bûyera dikare siyaseta cîhanî serûbin bike, û herwisa çawan kêmkirina aloziya digel Çîn di dehka 1970’î de rû da. Îran mezintir û gellek girîngtir e ji Kûbayê. Ew welat di nav dilê herêmeke aloz ya cîhanê de hilketiye.

Beşeke zaf ji berjewendiya ewlehiya Îranê digel berjewendiya Amerîkayê di biyavekê de ye. Potansiyeleke aborî ya bihêz heye, ji dîtingeha jeopolîtîkê ve, alîkariya di navbera Kûba û Amerîkayê sînaryoyeke din e. Avakirina pêwendî û alîkarî digel Îranê, û bi gotineke din dikare cîhanê berbirûyê guherînkariyan bike.

Gotûbêj ji bo ber bi pêşvebirina gihîştin bi lihevkirinê bi Kûbayê re, û civîna digel Îranê li derheq pirograma navikî ya wî welatî, nikare pêwendiya rasterast bi hev re hebe. Serbarê vê yekê jî serkevtin di pirojeyeke biçûk de, dikare hêzeke nû ji bo serkevtineke meztir berhem bîne.

Lihevkirina bi Kûbayê re nîşan da ku mohreyên şetrenca cîhanî tenê di cihekî de cihgir nînin û dikarin cîbicî bibin. Wezîrê Karê Derve Can Kirî ragehandibû ku hêvîdar e serdana Kûbayê bike, eva dikare bûyereke dîrokî be, lê serdana Îranê dikare ji vê yekê girîngtir be.

Waneyeke din ku dibe em ji vê bûyerê hîn bibin, mijara hilbijartinan e. Hekî her yek ji rikeberên berê yên Obama - Con Mekîn yan Mît Ronî- di koşka spî de biban, bi xatircemî ve pêşkevtineke bi vî rengî di dîtingeha me de li ser heliyana cemeda pêwendiyan digel Kûbayê rû nedida.

Her demekê ku çînek xwediyê deshilateke aborî be, li pey deshilata siyasî jî, rejîma pîr ya Kûbayê niha bo ragirtina hevsengiyê digel kêşeyên micid berbirû ye, û hatiye ser vê baweriyê ku guherînkariyê di rewşê de pêk bîne, û renge hêz û şiyana xwe ya bandordanînê ji dest dabin.

Di derfeteke dûr de pêwendî digel Îranê dikare çêbe. Herwisa alîkariyek vê îznê dide me, ku ji bo berbirûbûna di hemberî tundûtîjî û terorîzmê di Rojhilata Navîn de, em zêdetir çalak bin, û Îranê neçar bikin, ku di lihevkirineke desteberkirî de, di warê destpêregihîştina bi çeka navikî poşman bikin, ku encama vê yekê jî zêdebûna ewlehiya herêm û cîhanê ye.

**Çavkanî:**
**http//America.aljazeera.com**
**http: //foreignpolicy.com**

# *Birêz Kuqman Mêhfer: “Dr. Qasimlo gote min, min jî pêştir di Yekîtiya Lawan de kar dikir, û piştre tevlî refên hizbê bûm”.*

**H: Arif Vêlzî**

Birêz Luqman Mêhfer kurê Xurşîd, sala 1964 (1343)’an li gundê Mela Îsa ser bi herêma Deştebêla Şinoyê hatiye dinê. Ew şeş bira û çar xûşk in, ku tenê xûşkek ji wî biçûktir e. Navbirî di destpêkê de bi vî awayî bas ji serdema xwendina xwe ji me re kir:

“Di dema xwendinê de ez dersxwanekî jîr û zirek bûm, û di hemû qonaxên despêkî û nawendî û paşnawendî de, ez dersxwanê herî baş bûm, û min çendîn xelat ji aliyê rêvebiriya perwerdehiyê ve wergirtine, û heta di qonaxa nawendî de jî, ez yek bûm ji wan dersxwanên ku di xwendingeha Padigana Celdiyanê de, me xelat ji destê serokwezîrê wî çaxî yê rejîma Paşatiyê, wate Ebas Howêyda wergirt.

Di qonaxa despêkî ya xwendinê de, min beşek di gundê Mela Îsa, û beşek din jî li xwendingeha gundê Sofyanê, û qonaxa nawendî jî li xwendingeha Şeşê Behmen li Padgana celdiyan û paşnawendî jî di xwendingeha Koroş a bajarê Nexedê, û qonaxa zanîngehê jî piştî 18 sal veqetiyan ji xwendinê, li zankoya Selahedîn li Hewlêrê bi dawî anî. Min beşa yasa xwend, û niha jî ez parêzerê şêwirmend im”.

Birêz Luqman Mêhfer weha bas ji nasyariya xwe digel PDKÎ kir: “Hevalekî min gote min ku sibê (11.12.1357) xwe amade bike, emê herin bajarê Mihabadê, û PDKÎ wê tekoşîna xwe ya eşkere rabigehîne, û serokê PDKÎ wê ji bo xelkê baxive. Min jê pirsî gelo ma pêştir ev hizba hebûye? Wî gote min, ma te ji bavê xwe nebihîstiye ku basa serdema Pêşewa Qazî Mihemed û Komara Kurdistanê dikir, û bi xwe jî yek ji fermandarên wê Komaraê bûye, min jê pirsî, gelo ma eva çîrok bû ku bavê min bas dikir, yan rastî bû? Wî jî bi çavên pir ji rondik ve got, belê rastî bû.

Em çûne bajarê Mihabadê û şehîdê nemir Dr. Qasimlo dest bi axavtina xwe kir. Xelkekî zaf li wir kom bibûn, Dr. Qasimlo got, bi koriya çavên dijminên Kurd, PDKÎ piştî 32 salan qedexebûnê xebata xwe ya eşkere radigehîne. Piştî wê peyrew û pirogirama PDKÎ bi ser xelkê de hate parvekirin, û di nava xelkê de bas, basa PDKÎ bû.

Di Cozerdana sala 1979 (1358)’an de, heyetek Deftera Siyasî hate cem me, ku ew jî birêz Mistefa Hicrî û birêz Celîl Gadanî bûn. Wan Yekîtiya Lawan di gundê Sofyanê de damezrandin û ez bûme berpirsê Yekîtiya Lawan di Sofyanê de. Piştî şerê Sê Heyvî, konfirans li Nelosê de hate girtin, û di wê konfiransê de min bi nûneratiya Yekîtiya Lawan axavtinek kir, û di dema bêhnvedanê de Dr.Qasimlo destxweşî li min kir û gote min, min jî pêştir di Yekîtiya Lawan de kar kir, û piştre tevlî refên hizbê bûm. Piştre me bi hevûdu re, çend wêneyek girtin”.

Navbirî jî me re bas kir, ku di şerê sê heyvî de beşdarî kiriye: “Di dema şerê sê heyvî de, em di binkeyên hizbê de bûn, û me di şeran de beşdarî dikir, lê di rastî de hêza pêşmerge piştî girtina bajarê Mihabadê paşekêşe kir, û hêza pêşmerge wê demê xwe rêk û pêktir kir. Wê demê min bi awayekî rasterast tevî sê kesan bi navên Rehman Kerîmî fermande hêz, şehîd Rehman Sofîzade û Mihemed Kurdnijad (Elî Pîrejin) kar dikir”.

Birêz Luqman Mêhfer bîreweriya xwe ya xweş ya serdema pêşmergatiyê weha ji me re anî ziman: “Dema Ku Xumêynî nameya servekiriî ya şehîdê nemir Dr. Qasimlo qebûl kir, û hikûmet û hizb ketine nav gotûbêjan de, û pêşmerge vegeriyane nava bajaran, û ji aliyê xelkê ve hatin pêşwazîkirin, ew roj roja herî xweş a jiyana pêşmergatiya min e”. Navbirî jî wekî hemû pêşmergeyên din, bîreweriyên nexweş di pêşmergatiya xwe de hebûne, û weha bas ji bîreweriyên nexweş dike: “Mixabin bîreweriyên ne xweş, gellek in.

Dûrketin ji xwendinê, şehîd kirina hevalên herî nêzîk, ji dest dayîna herêmên azadkirî, girtin û îşkencekirina kes û karên min, û girtina bavê min yê 90 salî, ev hemû bireweriyên herî tal û nexweş in, lê bîreweriya herî nexweş şehîdkirina Dr. Qasimlo û piştre jî şehîd Dr. Şerefkendî bû”.


Birêz Luqman Mêhfer

Luqman Mêhfer weha bas ji jiyana xwe ya hevpar ji me re kir: “Di sala 1983 (18.07.1362)’an û di heyva “berevanî ji azadî û hebûna gelê Kurd” de, min digel keçekê bi navê Xecîc Lahîcanî jiyana hevbeş pêk anî. Min 5 keç û kurek hene, bi navên Qdir, Şilêr, Kinêr, Gelawêj, Beyan û Kanî ku her hemûyan zanîngeh bi dawî anîne, û Kanî jî di pola sê ya nawendî de ye”.

Di dawiyê de birêz Luqman Mêhfer ew peyama bo ciwanên Kurdistanê hebû: “Peyama min bo xelkê Kurdistanê ew e ku herwekî caran xweragir û hêvîdar bin, dev ji xebat û tekoşînê bernedin, û herwekî rêberê nemir Dr. Qasimlo dibêje: “Xelkê Kurdistanê Kelhek in, ku kadr û pêşmerge di nav vê kelhê de, erkên neteweyî û niştimanî yên xwe hene, lewra dibe em li ser vê rêbazê berdewam bin. Mixabin îro rojê ciwanên welat di çarçoveya enfala sipî de têne jinavbirin, ku ev jî Mu’tadbûna wan e, ku hesta neteweyî û şoreşvanî û kesatî û kerameta wan ji wan distîne.

Lewra daxwaza min ji dayîk û baban ew e ku di vî warî de hişyar bin û agehdarê zarokên xwe bikin”.

# Rêûresma vekirina kongireya sêyem a YJDKÎ bi rê ve çû





**Kurdistanmedia: Rêûresma vekirina kongireya Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurdistana Îranê bi beşdariya endmên fermî û endamên kongireya sêyem a YJDKÎ û herwiha mêhvanan, di Koyê de bi rê ve çû.**

Li gor raporta malpera Kurdistanmedia, roja Pênşem 1'ê Çileya Paşîn a 2014'an, rêûresma vekirina kongireya YJDKÎ bi rê ve çû.

Merasima han bi marşa neteweyî a Ey Reqîb û ragirtina deqeyekê bêdengî bo rêzgirtin ji canê paqij yê şehîdên riya rizgariya Kurdistanê dest pê kir.
Piştre ji aliyê rêvebera rêûresmê ve û bi navê komîteya amadekariya kongirê, bixêrhatina amadebûyan hate kirin.
Paştre peyama kongirê ji aliyê Hêro Celdiyan ve hate pêşkeşkirin.

Di beşa din a rêûresmê de, Teymûr Mistefayî endamê Deftera Siyasî a PDKÎ peyama Polîtbîroya PDKÎ pêşkeş kir.
Koma muzîkê ya PDKÎ di dirêjahiya merasimê de sirûdeke şoreşgerane pêşkeşê kongirê kir.

Peyama Nesrîn Qasimlo ji aliyê Kejal Neqşbendî ve hate xwandin. Piştre peyama teşkîlata nehînî ya Urmiyê bi nûnerayetiya teşkîlata hundir a YJDKÎ ji aliyê Kenêr Mêhfer ve hate xwandin. Herwiha bi hinceta vekirina kongireya sêyem a YJDKÎ Cebar Ehmed pexşanek pêşkeş kir.

Zîba Pîrozî, Nafîe Rehîmî, Cemîle Mohsîniye, Altun Sidaqet û Nîşteman Rûhanî endamên pêşîn yên rêveberiyê ji aliyê sekretera giştî ya YJDKÎ Îlham Çayçî ve xelata rêzgirtinê wergirtin.
Herwisa peyamên ku bo vê kongirê hatibûn, amaje bi navên wan hate kirin.
Kar û çalakiyên YJDKÎ yên di navbera kongireya 2-3 de, di dawiya rêûresmê de, wekî dekomêntarek hate nîşanda.

# Rêûresma bidawîhatina kongireya sêyemîn ya YJDKÎ bi rê ve çû







**Kurdistanmedia: kongireya 3'ê ya Yêkîtiya Jinên Demokrat a Kurdistana Îranê di bin navê "Kongireya Serxistina Îradeya Jinê", û bi diruşma "Pêşengiya jina kurd di pêxema pêşerojek azad de" bi awayekî serkeftî dawî bi karên xwe anî.**

Li gor nûçegehaniyan, piştînîvroya roja Şemî, 03.01.2015 (03.10.1393)'an rêûresma bidawîhatina kongireya sêyemîn a YJDKÎ bi rê ve çû.
Rêûresma han bi beşdariya endamên fermî yên YJDKÎ, û endamên birêveberiya YJDKÎ yên hilbijartiya kongireya sêyemîn, û endam û alîgir û pêşmergeyên PDKÎ, di binkeya serke ya PDKÎ li bajarê Koyê, bi siruda neteweyî ya "Ey reqîb", û ragirtina deqeyekê bêdengî bo rêzgirtin ji canê paqij ên hemû şehîdên kurdistanê dest pê kir.

Piştre Şine Dirûdger, endama birêveberiya YJDKÎ, rapora bidawîhatina kongireya YJDKÎ pêşkêşî beşdaran kir.
Piştre Xulam Fatihî bi alîkariya koma muzîkê ya PDKÎ, stranek bi navê "xema nan" pêşkêş bi beşdarên rêûresmê kir.

Di beşeke din a rêûresmê de, Şehîn Behmen Sultanî, bi nûnerayetiya komîteya YJDKÎ ya li derveyî welat, bi nûneratiya birêveberiya berê ya YJDKÎ qevdeke gulan pêşkêşî Îlham Çayçî, sekretêra berê ya YJDKÎ, û Fatime Osmanî, sekretêra nû hilbijartî ya kongireya sêyemîn kir.

Di dawiyê de ji aliyê YJDKÎ ve, sipas û pêzanîna hemû kadr û pêşmerge û organên PDKÎ hate kirin, bo vê ku di pêkhatina kongrê de alîkarê YJDKÎ bûn.

Piştre ji aliyê beşdarên rêûresmê ve pîrozbahî ji heyeta birêveberiya hilbijartiya kongireya sêyemîn a YJDKÎ hate kirin, û hêviya serketin û serfiraziyê bo wan hate xwastin, û rêûresm bi govend û dawetê bi dawî hat.

# Gotinên Navdaran



**A: Firat Ceweri**

Jiyaneke xerab, celebekî mirinê ye.

**Ovidius**

Qumar; zaroka hêrs û timayê, hevalê xerabiyê û bavê zerar û ziyanê ye.

**Geora Washington**

Hêz û azadiya milet rewşenbîriya milet e;
rewşenbîrên bi namûs, bîrewer, bihîstyar û xebatkar.

**Çexov**

Ger tirsonekî ji bo min baş be jî, ez dîsan nêzîk nabim.

**Napoleon**

Yê ku ji kesî natirse, mîna yê ku her kesî ditirsîne, bi hêz e.

**Schiller**

Tirs, koletî ye.

**Eflatun**

Hevaltiya evînê, her tim tirs dike.

**Racine**

Tirs, piraniya caran mirov hînî derewan dike.

**Alferd de Vigny**

# Kejal Ehmed li himbêza helbestê vedigere

**Piştî dûrketineke dirêj ji helbest û edebiyata kurdî, helbestvana kurd Kejal Ehmed bi riya belavkirina dîwaneke helbestan, li himêza helbest û wêjeya kurdî vegeriya.**



Biryar e ku Dezgeha Çandî ya Cemal Îrfan di demeke nêzîk de pêncemîn dîwana helbestan a Kejal Ehmed bi navê "Min Dibêt Xom Bismîl Bikem" çap û belav bike.

Ev dîwan, 10 salan piştî dîwana dawî ya Kejalê bi navê "Awênem Şikand" belav dibe.

Kejal Ehmed sala 1967'an li Kerkûkê ji dayîk bûye. Sala 1986'an yekem helbesta xwe belav kir. Ji sala 1992'an ve di warê rojnamevaniyê de kar dike.

# "Çîroka Şaristaniyê" bi kurdî çap dibe



**Hewlêr (Rûdaw) – Pirtûka nivîskarê navdarê amerîkî Wîll Durant a bi navê "Çîroka Şaristaniyê" (The Story of Civilization), ku yek ji mezintirîn jêderên dîrok û pêşveçûna şaristaniya dinyayê ye, bo zimanê kurdî hat wergerandin.**

Ev pirtûk yek ji projeyên giring ên Dezgeha Rewşenbîrî ya Cemal Îrfan e, û xwendevanên kurd dikarin bi riya wê zanyariyên berfrireh li ser dîrok û şaristaniya cîhanê bi dest bixin.

Pirtûk ji aliyê Ebdullah Resûlî ve hatiye wergerandin.
Wîll Durant (1885-1981) nivîskar, dîroknivîs û filosofekî amerîkî bû. Pirtûka wî ya herî navdar "Çîroka Şaristanyê" ye, ku ji 30 cildî pêk tê. Durant 11 cildên vê pirtûkê di navbera 1935-1975'an de, bi hevkariya hevjîna xwe Ariel Durant nivîsandiye. Di sala 1926'an de, Durant pirtûka "Çîroka Fîlosofiyê" nivîsand.

# "Deftera Mezin" ya Agota Kristof bi kurdî derket




**Hewlêr (Rûdaw)- Romana Deftera Mezin (Defterî Gewre) ya helbestvan û romannivîsa swîsrî ya Agota Kristof, bo zimanê kurdî hat wergerandin.**

Derbarê giringiya wergerandina vê romanê bo zimanê kurdî, wergerê romanê Selahedîn Bayezîdî got: "Romana Defterî Gewre bergê yekem ê serpêhatiya du cêwiyan e ku, bi romana Belge (bergê duyem) û Sêyem Derew (bergê sêyem) berdewam dibe, lewma jî bi navê "Tirîlojiya Cêwiyan" hatiye binavkirin."

Romana"Defterî Gewre" yekemîn karê Agota Kristof e ku bo zimanê kurdî (Zaravayê Soranî) tê wergerandin. Wergerê kurd Selahedîn Bayezîdî got: "Min ev pirtûk ji zimanê fransî wergerande ser zimanê kurdî. Herwiha min herdu cildên din jî yên vê romanê wergerandine, û bi niyet im wan jî çap bikim".

Agota Kristof (1935) li Hungaryayê ji dayik bûye. piştî re 1956an Agota tevî mêrê xwe û zaroka xwe ji welatê xwe derket û berê xwe da Swîsrayê û Di sala 2011 de, li mala xwe li Neuchâtelê koça dawî kir.

# Zimanê Kurdî


Daşir


Serşok


Destşok



**Beşa 10.** Dema xwendinê

## Jûrên xanî


Jûra razanê


Jûra rûniştinê

# Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

1- Koneka tarî, tijî têda durr û mirarî.
- Şikeft yek derî, tê de hene 32 kevrên spî.
- Şkeftek reş, tije mihên beş.

**Bersiv: Dev û didan**

2- Hevrist bi kevrî ve rist.
- Ban guşt e, bagurdan asin e. (* ser û mekîna sertiraşînê)
- Tistek xweşik heye Xwedê daye, zana û roniye, heft deriye, kî nezene bê mejî ye!!

**Bersiv: Ser**

3- Bê avdan, bê kolan, bê zibil û bê xodan şîn dibit.
- Hindî bibrî kata ji xwe didet.
- Hevrist bi kevrî ve rist.

**Bersiv: Mû, pirç**

4- Postê pisîkê, liser sivîkê.
- Du rêsiyên badayi, li berpal girê-dayi.
- Di ser te ra, di bin te ra, kirope di babê te ra.
* kirope: Katên êksalî yên darê ne.

**Bersiv: Simbêl**

5- Cotekî Marê reş, jorda xwe ber-dan Geliyê xweş.
- Du rêz giya, li pişt çiya.

**Bersiv: Kezî**

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja!**

**Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**

# Agirî

◆ Rojnameya “Agirî” di van malperên jêrên de bixwînin:
◆ www.Kurdistanmedia.com
◆ www.Agirimedia.org
◆ rojnamaagiri@gmail.com
◆ www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (245)


## *Pirtûka “kurdistan, azar û berxwedan” ji aliyê pêşmergeyekî PDKÎ bi zimanê kurdî hate wergerandin.*




**Kurdistanmedia: Pêşmergeyekî PDKÎ pirtûka “kurdistan, azar û berxwedan” ku pêk tê ji hemû nivîsandin û gotûbêjên Dr. Qasimlo, bo ser zimanê kurdî hatiye wergerandin.**

Siyamek Behmenî pêşmergeyê PDKÎ pirtûka han di 84’emîn salvegera jidayîkbûna Dr. Ebdulrehman Qasimlo çap û bilav kiriye. Siyamek Behmenî wergerê pirtûka “kurdistan, azar û berxwedan” ragehand ku pirtûka han bi boneya “Şeva Yelda” salvegera jidayîkbûna rêberê mezin yê gelê kurd û sekretêrê pêşin yê PDKÎ Dr. Ebdulrehman Qasimlo çap û bilav dike. Pirtûka “kurdistan, azar û berxwedan” ji du beşên sereke pêk hatiye:

Beşa Yekem: Pirtûka “kurdistan, azar û berxwedan” ku ji aliyê Îrec Îbadî ve ji zimanê îngilîzî ve bo ser zimanê farsî hatiye wergerandin. Herwisa Wergerandina nivîsandin û babetên Dr. Qasimlo ku ji aliyê Bêhzad Xoşhalî ve hatine komkirin.

Beşa duyem: Komek babet û nivîsandinên Dr. Qasimlo bi xwe ve digire, û bas ji qonaxên taybet bi dîroka neteweya kurd dike, û dîtingehên Dr. Qasimlo li derheq pirsgirêk û arîşeyên kurdan, û ev rewşa taybet radixe ber çavan, û herwisa bas ji hewlên Dr. Qasimlo bo çareserkirina wan arîşeyan dike, ku bi xwe di nav de bûye.

## *PDK û YNK’ê li ser himbêzkirina Sehrarûdî di pêşbirkê de bûn*



**Piştî vê ku Sehrarûdî bikujê şehîd Qasimlo ji aliyê berpirsayrên payebilind yên Herêma Kurdistanê ve hate pêşwazîkirin, Dr. Mîro Elyar endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ di pirogirameke TISHK TV de beşdar bû, û di vê derheqê de, bîr û boçûna xwe bi awayekî rohn û zelal eşkere kir.**

Navbirî ragehand ku berpirsyarên PDK û YNK’ê li ser bi germî himbêzkirina terorîst Sehrarûdî û tundtir maçêkirina Sehrarûdî pêşbirkê danîbûn. Navbirî herwisa got: “Berpirsyarên Herêma Kurdistanê vê carê, bi vê pêşwaziya xwe, hemû sînorên dîplomasiyê û sînorên siyasî û pêwendiyên navdewletî bezandin”.

Birêz Dr. Mîro Elyar herwisa ragehand ku: “Mixabin bêhurmetî tê kirin, bêhurmetî bi xebat û tekoşîna borî ya 10-11 milyon Kurdên Îranê. Vê yekê em nerehet kirine”.

Hêjayî base ye ku deqa vê gotûbêjê di malpera “Kurdistanmedia.com” de hatiye bilavkirin.

## *Ew herêmên ku bi rengên xwe, bûne herêmên balkêş ên cîhanê*

1-Îtyopî: Têkelbûna gûgird û xwê di nav behrê de.



2-Kolombiya: Rûbarê “Kano Kirîstaz” naskirî bi rûbarê “Bûka baranê”.



3-Çîn: Çiyayê “Zangîy” ku bi çend hêlên rengîn ew dîmen afirandiye.



4-Rûsiye: Gola “Baykal” li Sîbriyê, bi kûrahiya 1600 metroyan, gola herî kûr a cîhanê ye, û %20 ava şîrîn tê de ye, ku nebûye cemed.



5-Amerîka: Daristanên “Wayt Mawnteynz” di wilayeta “Niyo Hamşîr” di demsala payîzê de.



Çavkanî: Xendan